Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 88
31'ê Gulanê
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne



# BİRYARA ÎDAMKİRİNA FERZAD KEMANGER HATE PEJİRANDİN



Zarokên dibistanên Kamyaranê ji ber biryara îdama mamostayê xwe hêsiran dirêjin

Elîriza Cemşîdî, Berdevkê Desthilata Dadwerî a rejîma Komara Îslamî a Îranê di konfernaseke çapemeniyê de li Tehranê derkirina biryara îdamê ji bo mamsotayê Kurd yê Kamyaranî **Ferzad Kemanger** piştrast û erê kir û da zanîn ku tawana wî "muharibe"(şer tevî Xwedê) ye. Wî got Dadgehê Ferzad bi îdamê û 10 salê hepsê mehkûm kiriye.

Herwiha **Elî Heyderiyan** û **Ferhad Wekîlî** ku bi Ferzad re hatine mehkemekirin, bi buxtana ragirtin û veguhastina alavên teqandinê, bi 10 sal cezayê girtîgehê hatine mehkûmkirin! Buxtana han ji Kemanger jî hate dayîn.

Xelîl Behramiyan, parêzerê Ferzad Kemanger, di hevpeyvîna xwe a tevî BBC'ê de, diyarîkirina cezayê îdamê ji bo Kemanger, vedigerîne ser kurdbûna navhatî û gişt buxtanên lêdayî bi Ferzad red dike.

Navhatî dibêje: "Ferzad Kemanger tu agahiyek derheq çek û alavên teqandinê tune ye û alavên han li Tehranê di otombîla wî de hatine cîkirin, çunku di dema lêgerîna otombîla wî de ji aliyê hêzên întizamî yên rejîmê di rê yê de tu tiştek nehatiye peydakirin.

Hêjayî gotinê ye ku Ferzad Kemanger, Elî Heyderiyan û Ferhad Wekîlî, di dadgehîkirineke çend deqîqeyî de bi cezayê îdamê hatine mehkûmkirin.

Ferzad Kemanger û Elî Heyderiyan niha di zîndana Recayî Şehr a bajarê Kerecê de di rewşeke nebaş û metirsîdar de ne.

Ferhad Wekîlî, piştî çend mehan bendkirinê, ji girtîgeha Recayî Şehr ber bi girtîgeha Êvîn a Tehranê hatine veguhastin.

# "Êş Û Mirina Rehmanê Kurd" Bi Îspanî Derket

**Agirî; Avesta:**

Nivîskareke jin a Venezuelayî bi navê "Carol Prunhuber" dosta nêzîk ya Şehîd Dr. Qasimlo ku çendîn hevdîtin bi wî re pêk aniye, di nozdehemîn salvegera terorkirina rêberê navdar yê Kurd û Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, Şehîdê nemir Dr. Qasimlo pirtûkek bi navê "RAHMAN EL KURDO" (Êş û mirina Rehmanê kurd) çap kiriye.

Dom di rûpela 6'an de



## Peyama Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê Ji Bo Bîstemîn Konferansa Salane A Kongireya Neteweyî A Kurd Li Amerîka

**Rêzdar Dr. Saman Şalî, serokê Kongireya Neteweyî a Kurd(KNC) li Bakûrê Amerîkayê!**

Ji aliyê xwe û rêberiya partiya me, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ve bi henceta pêkanîna Konferansa we a salane, pîrozbahiyên xwe ên germ pêşkêşî we dikim û em hêviyê dixwazin kar û xebatên konferansê bi serkevtin bi dawî bihên û bigihîje hemû armancên xwe ku di destûra karê konferansê de hatine cihkirin.

Birêzano!

Wek ji tev aliyekê re aşkera ye, em wekî Kurd rojên hestyar û heshes di çarenivîsa gelê xwe de derbaz dikin, lewra domandina rêya xebata me ji bo rizgariyê hewcehî bi hûrbîniyeke zêdetir ji berê heye.

Dijminên gelê me di her çar parçeyan de piştî dehan salan serkut û kuştina xelkê û wêran û kavilkirina welatê me ne tenê her nekariye gelê me rastî têkçûnê bîne, belku her niha di hemû beşên Kurdistanê de, xebat û berxwedan bi awayên cur bi cur li dijî dagirkeran berdewam e. Tex û qatên neteweya Kurd di vî serdemî de bi dahûrandin û bîr û ramana pêşketinxwazane tevî dijminên Kurd xebat û berxwedaniyê dikin. Li Başûr desthilateke neteweyî – serbarê hemû pîlanên neyarên Kurdan- pêk hatiye û di vê herêmê de, xelk bi beşek ji xwestek û daxwazên xwe gihîştine û xebat ji bo bidestxistina destkevtên bêhtir dom dike.

Evana rûyê xemilî û bedew yên xebata gelê me ne ku cihê rûmet û serbilindiya Kurda ye li her cihekê ku dijîn. Lê di heman demê de hewce ye di bîra me de be ku carê rêyeke dûr û dirêj pêşberî me ye. Kêmasiyên navxwe, desthilatxwazî, danîna berjewendiyên takekes û girûpî li ser berjewendiyên neteweyî, nebûna baweriyê bi qanûn û pirensîpên demokratîk heta niha bingeha piraniya veqetiyan û cudabûnan di nava partiyên Kurdî de ye. Lewra kosp û astengên ser rêya azadî û rizgariya me tenê ne dijminên derveyî ne, belkî divêt em bandora paremayî û paşverûyiyê di hemû




şekl û metodekê di hundir de jî girîng bizanin û jê re bixebitin.

Em hêvî dikin konferansa we ya bîstem bi baldan bi hemû aliyên erênî û neyênî ên xebata me ya îro, bikare komek biryarên bi bandor û bi mifah ku bersivderê beşek ji pirsên doza gelê me be, bipejirîne û KNC weke berê zimanê aştî û tebahiyê di çepera xebat û tekoşîna gelê me de be. Nemaze em çavnihêrê vê



çendê ne ku zêdetir ji derbazbûyî ji bo pêkanîna Lobiya Kurdî li Amerîka bi armnaca pêşdebirina herçiqas bêtir a pirsa Kurd di nav civakê û dem û dezgehên vî welatî de hewlê bide.

PDK Îranê jî her wekî berê bi têkiliyên xwe ên dostane re tevî KNC’yê dê pêbend bimîne û piştevanek baş dibe ji bo hewl û tekoşîna we di rêya bidestveanîna armancên gel de.

Careke din jî serkevtî û pîroz be bîstemîn konferansa kongireya we.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**Mistefa Hicrî**

Têdîtin: Bîstemîn konferansa salane a **Kongireya Neteweyî a Kurd(KNC),** roja 10’ê Gulana 2008’an li Waşîngtonê hate lidarxistin. Peyama rêzdar Mistefa Hicrî , Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ji aliyê nûnerê partiyê li Amerîkayê Şerîf Bêhrûz ve bi vê hencetê hate pêşkêşkirin.

---

## Bi Beşdariya Şandek Ji PDK Îranê, Nehemîn Civîna “UNPO”yê Hate Lidarxistin

Nehemîn civîna giştî a Saziya Netewe û Gelên Bê Nûner(UNPO), bi beşdariya 40 şand ji nûnerên netewe û gelên bê nûner di Saziya Neteweyên Yekbûyî de, rojên 16 û 17.05.2008’an li Birûksel, paytexta Beljîkê birêve çû.

Di destpêkê de, Sekreterê Giştî yê “UNPO”yê, **Maryo Bûsdaçîn**, rapora çalakiyên saziya han di heyamê navbera civîna heştem û nehem de pêşkêş kir.

Piştre derheq çalakî, teknîk û stratejiyên “UNPO”yê, bona pêşvebirina armancên vê saziyê, bas hate kirin û bîr û ra bi hev re hatin guhartin.

Di doma vê civînê de hejmarek ji kesayetiyên naskirî û karnasên pirsên netewe û gelên bindest weke **Marko Pêrdûka**, endamê Meclîsa Senate a Îtalyayê, **Marko Kapalo**, nûnerê Parlemana Ewropayê(di girûpa Lîberal û Demokratên Parlemana Ewropayê) û **Maykêl Wolt Wan Pirok**, kesayetiyê akademîk yê Holandî, li ser vê mijarê axivîn.

Di beşek din a civîna han de, **Dr. Xusro Ebdulahî**, berpirsê pêwendiyên Navneteweyî yên PDK Îranê li derveyî welat, li ser rewşa Kurdistanê axivî û rewşa han ji beşdaran re şirove kir. Herwiha nûnerên partî û saziyên Ereb, Belûç û Azerî jî derheq rewşa deverên




xwe axivîn û zanyarî dan beşdaran.

Nûnerên her yek ji wan neteweyan, serbarê dana rohnkirinên hewce derheq tepeserkarî û zordariyên rojane û pêkanîna ferq û cudahiyên cur bi cur di warên aborî, siyasî, çandî û civakî yên li dijî neteweyên bindest ên Îranê, ji aliyê rejîma Komara Îslamî a Îranê ve li ser hevpêwendî û xebata hevbeş di çarçoveya Kongireya Neteweyên Îranê Federal de tekez kirin.

Di doma vê civînê de, biryarnameyeke hevbeş ku ji aliyê sê sazî û partiyên endam ên Kongireya Neteweyên Îrana Federal û Bizava Rabûna Neteweyî a Azerbaycanê, hatibû berhevkirin, bi piraniya dengan ve hate pesendkirin.

Navê wan sê saziyên endamên Kongireya Neteweyên Îrana Federal ku di civîna giştî de beşdar bûn ev in:

1. Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê 2. Partiya Xelkê Belûçistanê 3. Partiya Hevpêwendî ya Demokratîk a Xelkê Erebên Ehwazê.

Beşa duyem a vê civînê bona pejirandina endambûna hejmarek ji partî û saziyan ji aliyê civîna han ve hatibû diyarîkirin.

Di beşa han de, endambûna Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û Bizava Rabûna Neteweyî a Azerbaycana Başûr, bi piraniya dengan hate pesendkirin.

Hêjayî gotinê ye ku endambûna van du partiyan, berê ji aliyê rêberên “UNPO”yê ve hatibû pejirandin, lê pêka bername û pirograma Saziya “UNPO”yê, divêt di civîna giştî de ku navenda herî bilin a “UNPO”yê ye, endambûna saziyan tevahî bi awayê fermî bê pejirandin.

Beşek din a vê civînê bona hilbijartina rêberên nû hatibû terxankirin.

Di beşa dawî ya civîna han de, biryarnameya Giştî a “UNPO”yê hate pesendkirin.

Hêjayî gotinê ye ku **Dr. Xusro Ebdulahî**, berpirsê pêwendiyên navneteweyî yên PDK Îranê li derveyî welat û **Ebdula Hicab**, nûnerê PDK Îranê li “UNPO”yê beşdarî vê civînê bûn.

***

# UNPO'yê daxuyaniya hevbeş a nûnerên gelên kurd, azerî, ereb û belûç li îranê weke biryarnameya xwe a fermî pejirand

**Nehemîn civata giştî a UNPO'yê di nava rojên 16-17'ê meha Gulana 2008'an, di Parlemana Ewropayê(Biruksel, Beljîka) de hat lidarxistin.**

**Civata Giştî ya UNPO'yê bi yekdengî vê daxuyaniyê weke biryar dipejirîne:**

Bi liberçavgirtina vê çendê ku Îran welatek pirnetewe û pirzimanî ye ku ji neteweyên Azerî, Kurd, Fars, Ereb, Belûç, Turkmen û yên din pêk hatiye, bi agahdarbûn ji vê çendê ku yek ji sêyê a welat anku gelê Fars ji sala 1925'an virde desthilata welat bidestve girtiye û di encama vê desthilatdariyê de, Îran îro tevî awayên apartayd û cudahîdananên çandî û zimanî rû bi rû bûye.

Bi liberçavgirtina vê yekê ku di wî welatê pirreng û şibê mizayîkê de, nasyonalîstên tundajo ên Farsîziman di encama pêvajoyeke destçêkirî de, sîstema siyasî ji bo sîstema yekdest a dewlet-netewe guherandin û biryara pêşengên Şîî ên Farsan û nasyonalîstên tundrew, hemû netewe û kom û destekên qewî ên eslî yên din ji bazneya desthilatê avêtin derê.

Bi liberçavgirtina vê çendê ku hikûmetên yek li pey hev li Îranê siyaseta navendîkirina pêvajoya dewlet-netewesazî bi nirx û buhaya bêmafkirina gelên din pêşde biriye û kêmaniyên neteweyî ên Turkên Azerbaycanê, Ereb, Kurd, Belûç, Turkmen û yên din, tevî jinan di Îranê de bê maf ragirtine û ji vê rêyê ve civakeke tejî bê edaletiyê çê kiriye.

Bi liberçavgirtina vê yekê ku bikaranîna zimanên Erebî, Azerî, Belûçî û Kurdî di xwendingeh, medya û çapemeniyan de, heta di herêmên xwecih de hatiye yasax û qedexekirin û derfeta pêkanîna tu rêxistin an civateke kulturî an meşandina xebat û çalakiyên çandî ji neteweyên neFars re nahê dayîn, tenê dîroka Farsan weke dîroka Îranê tê naskirin û dîroka neteweyên din tê redkirin.




Bi liberçavgirtina vê yekê ku mafê xelkê Sunî meseb yê Îranê bi giştî tê binpêkirin û di xala 115'an a qanûna bingehîn a welat de rewa û berheqî bi vê bêmafkirinê tê dan, bi awayekê ku rê ji Suniyan re nahê dan bibin Serok Komarê welat û alîgirên vê baweriya olî weke hevwelatiyên pile du tên hesibandin.

Bi liberçavgirtina vê yekê ku Îran çavkaniya terorîzma dewletî di deverê de ye û ê bûye maka xeter û tirsê bi ser ewlekariya cîhanê û Rojhilata Navîn û navçeyên ne Fars û bindestê xwe bi xurtî mîlîtarîze kiriye û herdem rewşa leşkerî li wir zal e. Bi zanîna vê rastiyê ku di rewşekê de Melayên desthilatdar ne amade ne û ne karîna vê yekê hene ku îtîrafê bi çavkaniya ne ewlehî û bê tenahiyê yanî bêparkirina du ji sêyê a neteweyên ne Fars, ji maf û desthilatê bikin. Haşa ji vê çendê jî nahê kirin ku neteweyên Azerî, Kurd, Ereb, Belûç û Turkmen ku kêm û zêde wekî hev hatine bêdesthilatkirin, bi tenê nikarin rewşa welat biguherînin.

Bi liberçavgirtina vê yekê ku di halekê de her gelekê bawerî bi mafê bê vir û wir ê diyarîkirina çarenivîsa xwe heye û ne amade ye ku dest ji wî mafî berde, lê tevî sîstemeke cîhanî, Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û civata navneteweyî berbirî ne ku wê nêrînê napejirînin.


Ji aliyê çepê ve: Ebdula Hicab û Dr. Xusro Ebdulahî

Em weke Neteweyên Îranê li ser vê baweriyê ne ku hemû welatiyên Îranê divêt bi hev re di sîstemeke Federal an awayekî derefederal, lê li ser bingeha herêman de bijîn.

Bi liberçavgirtina vê çendê ku gelên me bawerî bi Îraneke demokratîk, tejî aştî, sekolar û federal hene, lewra em bawer in ku divêt Îran endameke berpirsiyar a civaka cîhanî bibe, me jê ve ye alternatîva bersivder a nigeraniya cîhanî li hember Îraneke xwediyê çekên zaf ên Etomî ye.

Bi liberçavgirtina vê yekê ku di demekê de ku hemû Îraniyên pêkîner ên neteweyên welat û komên qewmî bi hev re rêbaza pêşeroja Îranê didarêjin, Komara Îslamî a Îranê berbirûyê pirsgirêkên micid dibe, ew rejîma ku bi siyaseta niha a serkut û çewisandina gelan û bi xeteravêtina aştî û tenahiya cîhanê pirsgirêkên mezin afirandiye.

Bi liberçavgirtina vê yekê ku kongre li ser vê baweriyê ye, tenê rêya derbazbûn ji vê krîz û qeyrana niha ku rastî Îranê hatiye, avakirina sîstemeke nû ye û tev alternatîvên din weke parastina rewşa niha bêencam in û pêşeroja me zêdetir nerohn dikin.

Bi liberçavgirtina vê yekê ku neteweyên me di tu piroses û azmûneke aborî û civakî de beşdariyê nakin ku mafê diyarîkirina çarenivîsa wan ewle û garantî neke yan piştevaniyeke cîhanî di çarçoveya qanûnên navneteweyî de, ji bo ku mafên wan garantî neke, Civata Giştî a UNPO'yê ev pêşniyarên Kongireya Neteweyên Îrana Federal(CNFI) dipejirîne.

1. Çewisandin û binpêkirina mafên neteweyan, kêmaniyên etnîkî, olî û qewmî di Îranê de mehkûm e.

2. Daxwaz tê kirin ku Sekreterê Giştî yê Neteweyên Yekbûyî(UN) biryarekê bide ku li ser binpêkirina mafên mirovan, komkujî û tunekirina gelan ku di herêmên EL Ehwaz(Xozistan), Kurdistan, Belûçistan û Azerbaycanê de hatine û tên meşandin, lêkolînên berfireh bike.

Ev pêşniyarbiryare ji aliyê endamên UNPO'yê di Kongireya Neteweyên Îrana Federal de, bi nûneratî ji aliyê gelên Ehwaz, Belûç û Kurd û herwiha piştgiriya gelê Azerbaycanê bi komdengî di Koma Giştî ya UNPO'yê de hate pejirandin.

# Kurdistan Dayîka Werzgariya Cîhanê

**Mehendiz Cangîr Îsmayîlzade**
**Kurdiya wê: Mizefer Begzade**

Werin em Kurdistan ku dayîka werzgariya(ziraet) cîhanê û landika şaristaniyeta mirovahiyê ye, ji nû ve bixemilînin. Devera navbera du ava Beynilnehrîn û Zagros ku piraniya vê Kurdistan e, bi şahidiya dîrokê û arkoelojî (bastannas) ji bo cara yekê mirovan dest bi çandinî û kedîkirina lawiran û hêdî hêdî jiyana di şikeftan da û tenê nêçîrkirin bi jiyana gundîtî û werzgariyê guheradin û dest bi çêkirina xaniya kirin ku ev guherandinên hanê yên mezin di cîhanê de belav bûn, ji bo nimûne kevinbûna kedîkirina bizinan (bizinên reş yên Zagrosê) û pez di devera Zagros û Mezopotamiya vedigere bo 10 heta 12 hezar salan berî niha û destkevtên din ên wek şerab çar hezar sal berê di Kurdistanê de hatiye bikaranîn û her wisa peydakirina yekemîn gund ku nîşana bi hev re jiyana gundîtiyê ye, elbete evana nimûneyek in ji sedan karên din ku ji bo cara yekê di vê deverê da hatine encamdan ku bûne harîkar ji bo pêşveçûna şaristaniyeta mirovatiyê di cîhanê de.

Lêbelê di mercên niha de eger rewşa deverê û av û hewa û çavkaniyên xwezayî yên Kurdistanê bikevin ber lêkolîn û dahûrandinê, emê bi hêsanî bibînin ku bihust bi bihustên wî welatî ciyê mifawergirtinê ji bo çandinî, baxdarî û ajildariyê ye, îca evana xêncî xizîne û çavkaniyên binerd yên xwezayî ne ku bi xwe dewlemendiyên mezin in. Di vî welatî de devrên pan û berîn yên sar, hênik, germ hene û her wisa xaliyeke bixêr û bêr a avên sererd û binerd û baranên kêm û zêde, îca eger bi rêveberî û awayekî rast mifa ji wan bê wergirtin, dikare pêwîstiyên xwarinê ji bo civateke çendîn hemberî civata niha ya Kurdistanê bi dest bîne û digel pişkên senetî yên çandiniyê, di rastî da dibe serwet û samaneke mezin ku bûye nesîbê gelê Kurdistanê. Deverên zozanî û çiya û sar çavkaniyên mezin in ji bo çandiniyên ciyê sar û alif û ajildariyê, û deverên hênik û gerim baştirîn delîve ne ji bo çandiniyê, bi taybet bax û bostan û mêweyên cur bi cur Naxwazim di vira de derbazî babetên hûr ên pisporane bibim, çûnkî ev mijareke gellek dirêj e. Ji aliyê din ve dijmin û neyarên gelê Kurd jî têgihîştinê û dewlemendiyên xwezayî ên vê deverê bi başî nas kirine û bi hincetên xeyalî û pîlanên xiyanetkarane gundên Kurdistanê wêran û gundî bi zorî koçî derdora bajêran kirin û keç û xort ji azmûnên salmendan bêpar kirin û ev pişka ekonomiyê tenê ku Kurdistanê hebû, ji nav bibe û gelê Kurd tune bike. Bo mînak, berî dehan salan, rejîma Bees dest bi wêrankirina gundên Başûra Kurdistanê kir û gundî birin bi civatên dijwar û dilêş û koçber kirin û zêdetir ji çar hezar gundên Kurdistanê xirab û text kirin û bi salan bê mifa man, ewa ku gellek ciyê nigeraniyê ye dûriya keç û xortên wê demê, di rastî de nifşekê ji wan li ciyê kal û babê xwe ku hêdî hêdî hezkirin û girêdana wan bi zevî û çandinî di gundan de kêm û kêmtir dike û li azmûnên çend hezar salî yên cotkariya vê deverê bêpar dimînin, wek wê beyta Hafizê Şîrazî ku nîsana wê rastiyê ye: "Bulbulî xwonê ciger xword û gulî hasil kerd badê xîret bi sedeş xar perîşan dil kerd" (Dibêje Bilbilê bi xebat û zehmeteke gellek gulek gehand, lêbelê bayê hesûd û nehez bi sedan qirş û qeleman perîşan kir).

Li gor agahiyên ku min hene , dibêjin di Kurdistana azad de li sedsala 4 heta %5 an de, kes di beşa çandiniyê de bi werzigariyê ve mijûl in, ev li sedê 5 di pişka werzigariyê de ji bo welatên Ewropayê re baş e, lêbelê di Kurdistanê û wê rewşa vê ya niha de çi şeweyekê têr nake û pêwîstî bi hêza mirovî ya zêde yanî derdora ji sedî 20'ê civakê heye, ji ber ku:

1- Di Kurdistanê de werzigarî ji aliyê mekanîzekirinê ve tevî eva dilê meriv dixwaze, navberke gellek heye.

2- Ji bo çêkirina xerabiyên ku ji aliyê siyasetên cinayetkarane yên rejîmên berê hatine meşandin, pêwîstî bi hêzekî însanî ya gellek heye.

3- Kurdistan hêj nebûye senetî ku keç û xort di wê pişkê de mijûlî kar bibin.

4- Karê sabit ji bo keç û xortan û bi taybetî gundiyan di bajaran de hêj kêm e.

5- Ji hemûyan girîngtir aliyên civakî û siyasî yên vê dozê (qeziyê) ne, çunkî bêkarî yan jî kêmkarî ji bo keç û xortan di bajaran û dordorên bajarên mezin de xêncî rewşa xerab a jiyana wan, dibine nêçîrek baş ji bo kes yan jî komên firsetxwaz û lêbok ku pê lêbandin û gotinên tund û dana soz û qirerên nerast û mifahwergirtina nebaş ji îdeolojiyên çi çep yan rast ên tundrew yan jî olî, dibine sedemên xerabî û xelitandina û hederdana wê pişka binirx a civakê, nimûna xuya ya vê di dema hikûmeta Mihemdriza Şahê Îranê de bû ku keç û xort bi kom ji gundan çûne derdorên bajarên mezin û ji ber siyasetên nerast û qîmet nedan bi werzgariya hundirê welat û dabeşkirina zeviyan bi awayekî bê bername, navbera gundiyan û nebûna rêvebriyeke nû bi ciyê rêveberên pêşde yanî xweyî erd(xweyî gundan) dahata werzgariyê kêmtir bû û ferqa rûberê jiyana bajaran digel jiyana gundan jî bûne sedemek, di rastî da koçeke bizor û nerasterast bû ku piştre jî ji bo Melayan bûne leşkereke belaş ku karîn bi harîkaiya wan û bajariyênwek wan, ku faktorek berçav bûn, ji bo guherandin û xelitandina rêya şoreşa neteweyên Îranê mifahê bistînin.

Lê belê di Kurdistana azadkirî da rewş bi timî cuda ye, çûnkî dijmin bû sedemên awarekirin û derbederkirina gundiyan, dîsan jî ji bo jinavbirina vê nexweşiyê xebateke seranserî pêwîst e, û berî hemû kes gundî bi xwe bi taybet gundiyên keç û xort divêt xwe berpirs bizanin û bixebitin ji bo pêşerojeke geş ji xwe re û nivşên piştî xwe çê bikin, bi cih e ku di bajaran de sergerdan yan jî bi berhevkirina hinek dirav rêya welatên rojava bidin berxwe ku ev jî encamên nigatîv bi xwe re tine. Ji hemû tiştî baştir e ku vegerin ser ciyê kal û babê xwe û bi rêyên baştir û nû dest bi çandinî û ajildarî û baxdariyê bikin, ew bawer in pêşerojeke ron li benda wan e û zêdeyî wê hindê encam û netîca vî karî xizmeteke mezin e ji bo welat û hevwelatiyan û jiyandina dubare ya vê pişka aborî a Kurdistanê.

Pirr ron û aşkere ye ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê hikûmeteke gelî û bi başî hemû pirs û pirsgirêkên Kurdistanê agahdar e û ji bo jiyandina werzigariya Kurdistanê jî çi xebatên pêwîst xwe pare nagire, gelî keç û xortan niha eva hol û eva jî çelhol.


Wêne: Geliyê Tepikê li herêma Soma Bıradost a bajarê Urmiyê

Ciyê gotinê ye ku teşwîqên malî, sermayeguzarî di beşa werzgariyê de, ewlehî ji bo kar, rênîşanî, dana agahî û dana xizmetên pêwîst ji aliyê berpisên karê werzigariyê roleke bingehîn heye, her wisa rolê keç û xortên xwende di pişkên cur bi cur yên endazeyariya werzgariyê û tevî wergirtin ji azmûnên werzgarên salmend û girêdana wan bi teknolojiya nû û rijdkirina keç û xort û gundiyan, girîngtir ji hemûyan rolên partî û saziyê siyasî di rêya teşwîq û hevkarîkirin ji bo berhevkirina derfetên ji dest çûyî xuya û berçav in. Ez ser wê bawerê me ku bi wan karana piştî demeke kurt Kurdistan dê anîna berhemên biyanî yên bermayî ji derve ne tenê dê bêniyaz be, belku bi xwe berhemên werzigariyê yên curecur dê bişîne derve.

Aşkera ye ku cîbicîkirina xitmetguzariyên dermanî, perwerde, rê û ban û yên mayîn ku cudayî ya rûberê jiyana di navbera gund û bajaran de kêm dike û ê bibe teşwîq ji bo domandina karê gundiyan û biciamîna evana ji aliyê hemû organên dewletî ve pêwîst in.

Bi hêviya wê rojê ku ne hin dûr e, Kurdistan ev mîratên pirr ji rûmet û şanaziya cîhana mirovahiyê ku xwedanê çavkaniyên bihêz ên xwezayî di pişka werzigariyê ku hertim di jiyana mirovan de roleke girîng hebûye û herwisa senetê girêdayî bi pişka werzgariyê ku bingeha senetîbûna welatekê bixwe re tîne, pê xebatên hemû aliyan bigihîjine pileyeke pêşveçûnê ku di Rojhilata Navîn de bibe nimûnek ku ne tenê gelê Kurdistanê belku xelkên din jî ji wan destkevtan mifayê werbigirin.

***

# Seredana Hesen Şerefî Ji Wezareta Derve Û Partiya Sosyal Demokrat A Swêdê

Roja duşem, 26.05.2008’an, rêzdar Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDK Îranê seredana Partiya Sosyal Demokrat a Swêdê kir ku ji aliyê xatûna Ana Lînd, berpirsa pêwedniyên navneteweyî ên vê partiyê ve hate pêşwazîkirin.

Di hevdîtina han de Hesen Şerefî, bal kişande ser armancên Kongireya 14 û siyaseta PDK Îranê derheq dabînkirina demokrasî û mafê mirovan di Îranê de.

Navhatî her wiha bi berfirehî li ser rewşa PDK Îranê di asta navneteweyî û navxweyî û rol û girîngiya Kongireya Neteweyên Îrana Federal axivî.

Her wiha xatûna Ana Lînd, piştevaniya partiya xwe ji siyasetên PDK Îranê derheq dabînkirina azadî, demokrasî û mafê mirovan li Îranê ragihand.



Di dawiya hevdîtina han de her du aliyan li ser berfirehkirina pêwendiyên di navbera hevdu de tekez kirin.

Herwiha di heman rojê de, birêz Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, seredana Wezareta Karê Derve a Swêdê kir û ji aliyê Yonas Wêndîl, yek ji berpirsên beşa Rojhilata Navîn û Îranê ve hate pêşwazîkirin.

Di hevdîtina han de, Hesen Şerefî bal kişande ser binpêkirina mafê mirovan li Îranê û bi awayekî berfireh siyaseta tepeserkirinê a rejîma Komara Îslamî di Îran û Kurdistanê de şirove kir.

Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, her wiha li ser siyaset û armancên Komara Îslamî derheq piştevanîkirin ji girûpên terorîstî, bidestveanîna çekên Etomî û gefên vê rejîmê li ser pêvajoya aştî û tenahiya navneteweyî axivî.

Hesen Şerefî, her wiha li ser rewşa PDK Îranê di asta navneteweyî û navxweyî de axivî. Navhatî her wiha bas ji Kongireya Neteweyên Îrana Federal kir û daxwaza piştevaniyê ji xebata neteweyî û demokratîk a neteweya Kurd û Partiya Demokrat kir.

**Navenda Yekîtiya Kurdan**

# Weke Endamê Çavdêr Yê Federasyona Neteweyên Ewropayê Hate Wergirtin

Kongireya Federasyona Neteweyên Ewropayê a pêncî û sêyemîn di navbera rojên 22 – 24’ê Gulana 2008’an li Paytexta Çandî a Ewropayê di sala 2010’an de, yanî bajarê Pêç a welatê Macaristanê hate lidarxistin. Dirûşma sereke a kongireyê mafê medya û ragihandinê ji bo kêmaniyên neteweyî bû.

Şanda navenda Yekîtiya Kurdan ku li ser vexwendina fermî û weke rêxistina çavdêr di kongireya han de beşdar bû, pêkhatî bû ji: **Hîsam Heyderî**, Berpirsiyarê Giştî yê Navenda Yekîtiya Kurdan, **Niştiman Derwêşî**, Berpirsiyara Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê li Swêdê, **Behmen Qelenderî**, berpirsiyarê Giştî ê ragihandinê û **Arezû Hîsamîm**, Berpirsiyara Pêwendiyên navneteweyî a Navenxda Yekîtiya Kurdan.

Rêzdar Hans Hînrîc, Serokê Federasyona Neteweyên Ewropayê bi fermî bixêrhatina take rêxistina Kurdî a beşdar di kongireyê de kir û her wiha Hîsam Heyderî, peyama pîrozbahî a birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ji bo kongireyê pêşkêşî serokê giştî kir û daxwaz ji wan kir ku seredana Kurdistanê bikin.

Birêz Hînrîc tevî şabûn û spas û pêzanî ji peyama Serkreterê Giştî yê PDK Îranê, soz da di pêşerojê de seredana Kurdistanê bike.

Rojek beriya destpêbûna xebatên kongireyê, bi awayekî fermî hemû endamên Federasyonê seredana Navenda Deng û Reng û Mala Çandî a Macaristanê li cihê birêveçûna Kongireyê de kirin û ji nêzîk ve tevî awayê pûte û girîngîdana vî welatî bi mafê hebûna medya û ragihandinê ji bo kêmaniyên neteweyî ên Macaristann nasyar bûn.

Kongire bi axavtina birêz Hans Hînrîc, Serokê Giştî yê Federasyonê, bi fermî dest bi xebatên xwe kir û di heyamê 2 rojan karê berdewam de, têkoşîna federasyonê di navbera du kongireyan de kete berbas û komek pêşniyar û proje raberî kongireyê hatin kirin.

Di dema têkoşîna organa herî bilind a biryarder di federasyonê de, şanda Navenda Yekîtiya Kurdan tev komek kesayetiyên siyasî û biryarder ên welatên endam ên Yekîtiya Eworpayê hevdîtin pêk anî ku ev in:

1. Wezîrê Hundir û nûnerê taybet yê Serok Wezîrê Macaristanê
2. Berpirsiyara Giştî a kar û barên jinan li YE’ê
3. Berpirsiyarê Komsîyona Hevkarî a Kêmaniyên Neteweyî li YE’ê.

Hevdem hevdîtinek taybet ji bo berpirsiyara Giştî a YCDK Îranê li Swêdê, Nîtiman Derwêşî bi serokê Ciwanên Federasyona Neteweyên Ewropayê re pêk hat. Serokê Ciwanên Federasyona navhatî, tevî xuyakirina kêfxweşiya xwe ji beşdariya nûnera ciwanên Kurd di kongireyê de, hêviya domkirina têkiliyên navbera du saziyan de kir.

Hêjayî gotinê ye, şanda Navenda Yekîtiya Kurdan bo şeva berî bidawîhatina kongireyê bi fermî ji aliyê xatûna Katalîn Sîzlî, Seroka Parlemana Macaristanê hate ve vexwendin.

Pêncî û sêyemîn Kongireya Federasyona Neteweyên Ewropayê roja şemî, 24’ Gulana 2008’an dawî bi karên xwe anî.


Şanda Navenda Yekîtiya Kurdan tevî Hans Hînrîc, Serokê Giştî yê Federasyona Neteweyên Ewropayê

**Rapor: Navenda Yekîtiya Kurdan li Swêdê**



## Şiroveya Peyvên Siyasî

Berhevkar: Omîd Esxeran

omid_anbi@yahoo.com

# MARKSÎZM

Marksîzm ji hizr û ramanên Marks, fîlesofê bi nav û deng ê matiryalî û alîgirên wê hizrê re tê gotin. Karil Marks di navbera salên 1818 – 1883'an de jiyaye û tevî heval û hevhizrê xwe, Firêdrîk Îngels(1820 – 1895), serbarê nivîsandina pirtûk û nivîsarên cur bi cur, hîmê teoriya xwe derheq aborî û civakê darêtiye û bi awayekî çalak hewla cihgirkirina Sosyalîzm û Komonîzmê di cîhanê de daye.

Marks di teoriyên xwe de bi awayekî zelal sedemên serhildan û têkçûna her yek ji qonaxên civakî dixe holê û di encam de hiloşîna sîstema sermayedarî ji aliyê qata zehmetkêş yan peroltariyayê ve weke tiştek misoger dizane. Li gor nêrîna Marks, serhildana diyalektên madî û aborî bê pevçûn û şerê navbera tex û qatan nahê bidestveanîn û kemilîna şaristaniyetê ji qonaxekê ve ber bi qonaxek din, bê rikeberanê û tund û tûjiya qatî nahê piraktîzekirin. Piştre navhatî rol û erkê rasteqîn yê kedkaran di warê vejandina cîhana bê çîn û tex dixe rojevê û hewl û xebata wan a tev alî girîng dinirxîne.

Di nava bingehên felsefeya Marks de, hin teorî hêjayî baldanê ne ku pêkhatî ne ji:

1. Matiryalîzma diyalektîk ku teorî û kiryarê bihev re girê dide. Matiryalîzma diyalektîk ji bo her bûyerekê bawerî bi sê fakterên bi bandor heye ku bi Têz(These), Antî Têz(Antithese) û Sentêz(Synthese) hatine binavkirin. Bo mînak li gor nêrîna navhatî, **Kapîtalîzm** Têz e û **kedkarAntîTêz** e û **Sosyalîzm jî Sen Têz** e.

Marks aboriyê weke bingeha gişt bûyerên dîrokî dihesibîne û hêza berhemanîna aborî weke hêza hayder a civakê dihesibîne.

2. Matiryalîzma Dîrokî. Li gor vê Teoriyê kemilîbûna meriv ji rêya kemilîna alavên berhemanînê ve tê misogerkirin ku eva jî li gor hewcehiyên madî yên meriv tên holê û her cure deb û edet, bîr û bawerî û tiradîsyonek li gor kemilîbûna han rêk dikevin û serî hildidin û serxana her civakekê li gor wan guhartinên ku di nava civakê de rû didin, tên guhartin.

Marks li ser vê baweriyê ye ku di heyama dîrokê de, pevçûnek berdewam û bêrawestan di navbera texa çewsêner an serdest û qata bindest de, dimeşe. Di bingehên zanista aboriyê de jî Marks teroriya xwe li ser hizra buhaya berheman dadimezirîne. Navhatî dibêje: "Berhem bi giştî xwediyê aliyek hevbeş in ku ev jî asta wî karî ye ku bona bidestveanîna wê hatiye encamdan û ev çende jî nirx û buhaya berheman diyarî dike". Sermayedar dewsa vê çendê ku buhaya hêza kar ji karhatî û zêde buhayê jî ji kedkar re bide, wê ji bo xwe hildigire û bi vî awayî rêya çewisandin û kedxwarinê digire pêşiya xwe û di encam de jî heyîn û pereyek zaf bidestve tîne û piştî vê çendê jî delîve û rêyê ji bo serhildan û pevçûnan pêk tîne û texa zehmetkêş piştî hiloşandina sermayedariyê, alavên berhemanînê bidestve digirin û weke take çîna civakê li ser kar û xebata xwe berdewam dibin ku di encama vê çendê de jî civak dibe civakek bê tex û qat.

Piştî Manîfestê ku di sala 1848'an de ji aliyê Marks û Îngels ve hate ragihandin, girîngtirîn berhema Marks pirtûka Sermaye(Capital) a wî ye ku berge yekem a wê di heyama jiyana Marks de derçû û du bergên din jî ji aliyê Îngels ve hatin çap û belavkirin.

Stalîn di nivîsînên xwe de Marksîzmê dike du beş ku pêkhatî ne ji:

1. Marksîzma Dogmatîk(Dogmatic Marxism). Armanc ji vê çendê Marksîzma destpêkîn e ku ji aliyê Marks ve hatiye danîn û li gor vê hizrê divêt gişt tiştên ku ji aliyê Marks ve hatine gotin, werin cîbicîkirin û li gor zirûfên serdem jî tu guhartinek tê de pêk nehên.

2. Marksîzma Kiriyator(Creiator Marxism) yan Marksîzma dahêner. Bingeha vê hizrê eva ye ku heke li gor zirûfên serdem, guhartin di Marksîzmê de pêk bên, eva Marksîzm dê herdem karîna afirîner a xwe biparêze û kevin nabe. Stalîn bi awayekî eşkere dibîje: "Ez alîgiriyê ji hizra duyem dikim".

Em nikarin Marks(ku xwe bi Marksîst nedihesiband) weke berpirsê hemû evraz û nişîvên dîktîrîna Marksîzmê bihesibînin. Lê hin nerohnî û veqetiyan di teoriyên wî de hene ku rêyê ji bo rave û şirovekirinên dijî hev ên alîgirên wê xweş dikirin. Her weke ku em mêze dikin, Lenînîzm rûçikek Rûsî, Maoîzm rûçikek Çînî û Kastroîzm jî rûçikek Amerîkaya Latîn bixwe girtine û vê dawiyê jî em di cîhanê de nêrevanê serhildana Komonîzma Ewropî bûn ku partiyên komonîst ên Fransa, Îtaliya û Îspaniyayê weke pêşengên wê tên hesibandin.

Nivîsarên Marks netenê di warê bizavên siyasî, belku di warê şeklên civaknasiya îro de jî, bandorek zaf li ser zanista han de daniye û bi giştî weke fakterek bihêz û ewle di pêkhateya kemilîbûna qonaxên dawîn yên hizra nûjen de, tê hesibandin.

**Çavkanî:**

**(Ferhengî Ramiyarî Nîga) Azad Weledbegî**

**(Danêşnamêyê Siyasî) "Politicial Dictionary" Daryûş Aşorî**

**Doma rûpela 1**

Ma kî xemê kurda dixwe? Demekê ku nivîskara Venezoelayî, "Carol Prunhuber" serdana weşanxaneya ALFA dike, êdîtorê weşanxaneyê ku bi Îspanî pirtûkan çap dike, bi vê pirsê bersiva nivîskara pirtûkê dide, lê serbarê vê yekê pirtûkê çap dike.

Pirtûk bi navê "Êş û mirina Rehmanê kurd" li sala 1992'an hatibû nîvisandin, lê piştî 16 salan, di vê heyvê da roj dît. Spas bo weşanên **Alfa** ku biryara çapkirina vê pirtûkê dabû.

Di sala 1985'an de Carol Prunhuber ji bo çêkirina hevdîtinek tevî Dr. Qasimlo berê xwe dabû Rojhilata Kurdistanê, piştre li Ewropayê gellek car hevdû dîtin. "ne bes serokê rêxistinek çekdarî bû, her wisa mirovek gellek jîr û zana bû, bi heft zimanan diaxivî, ji romana navnetewî gellek hez dikir û her wisa gellek helbestan dixwend".



Prunhuber di pirtûka xwe de gellek hevpeyvîn bi siyasetmedarên dunyayê re li ser kesayetiya Dr. Qasimlo çê kirine. Wek nimûne, Wezîrê Karê Derve yê Fransayê "Bernard Kouchner" yê ku ser Qasimlo wiha dibêje: "Di nav kurda de wek wî tune bûn, ew xwediyê fikr û ramanek navnetewî bû".

Wê herwiha tevî Parlamentarê Otrîşî, "Peter Pilz" ji Partiya Kesk ku li ser terorkirina Dr. Qasimlo li dijî Îranê doz vekiribû, hevpeyvînek çê kiriye û di vê derbarê de û li ser dosyaya vî Parlamaneterî dibêje: " Serok Komarê niha yê Îranê Mehmûd Ehmedînejad û Haşimî Refsencaî di terorkirina Dr. Qasimlo de dest hebûne û ev teror pilan kirbûn".

Di pirtûka wê nivîskara Venezuelayî de, dukoment û belgeyên din li ser terorkirina Dr. Qasimlo hatine berhevkirin û çap bûne û herwiha basa terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî jî dike. Pirtûk bi hêjayî û hûrbînî ve hatiye berhevkirin û her tişt bi belge hatiye selimandin.

# Lênihêrînek Bi Ser Meydana Karkerên Bajarê Urmiyê

**Mecîd Cinîkanlû**

Ger hûn sibêdêyekê zû herin nava bajarê Urmiyê ku navenda parêzgeha Azerbacana Rojava û herwiha duyemîn bajarê mezin yê Kurdistana Îranê tê hesibandin û li kêlek meydana mêweyan re derbaz bibin, dîmeneke bawernekirî dikeve ber çavê we. Belê hûn dê hejmarek zaf ji karkeran ku pitir ji çend hezar kesan dibe û her rojê bi hêviya peydakirina kar bera xwe didine vê meydanê, bibînin. Piraniya van karkeran ji gund û herêmên derdora bajarê Urmiyê û heta ji bajarên din ên parêzgeha Azerbaycana Rojava weke Mehabad, Serdeşt, Şino û Makûyê koçberî vî bajarî bûne û tenê bi hêviya dahata paletiyê jiyanê dikin. Helbet ger rojekê ji wan re kar peyda bibe!!



Tiştek ku pitir bala her mirovekî ber bi aliyê xwe ve dikişîne, hebûna jin û keçên Kurd di nava vê meydanê de ye ku ji bona peydakirina kar hemû rojê dibine mêvanê vî cihî.

Jin û keçên ku her rojê divêt ji xewa şîrîn û xweş rabin û ji bo debara jiyanê û bona têrkirina zikê xwe û malbata xwe yan kirîna kinc û hewcehiyên destpêkî yên jiyanê bera xwe didine vê meydanê û bi neçarî amade ne hemû karek dijwar û giran bikin.

Heke mirov binêre çavê bê sûç yên van keç û jinan, pêlek ji xwezî û hêviyên paqij ku mafê her mirovekê bona jiyanê ye, dikare bibîne. Keçên ku her rojê ji Xwedê daxwaza rizgarbûn ji vê jiyanê dikin. Lê mixabin hawara wan herdem bê bersîv maye.

Tiştek din ku di vê meydanê de dikeve ber çavan, hebûna pîremêran e. Tenê tiştek ku dikare wan ber bi vê meydanê rakişîne, hejarî û xizanî ye. Çimku hem hêza wan ya cismî û hem temenê wan şiyana encamdana karên dijwar tune ye û ger neçarî tune ba, diviya ev kesane di vî temenî de bal malbata xwe di halê xwendin û perwerdehiya akademîk de biban. Lê mixabin ku divêt ew her roj bona peydakirina debara jiyanê seredana meydana han bikin. Tişteke din ku di vê meydanê de tê dîtin û bala her kesî bo aliyê xwe ve radikişîne, hebûna dehan butik û dirişqeyên gerok ên destî ku xwdiyên wan li ser wan sêvikên keliyayî di nava polan de û kêk û vexwarinan bar dikin û bi hêviya vê çendê ku renge yek ji van karkeran ku bona peydakirin a kar hatine vê meydanê, sêvikek yan kêk û vexwarine ke ji wan bikire û ew jî bi vî awayî debara jiyana xwe bikin. Helbet ger kesek hebe ku bikire?!.



Divêt bibêjim ku karkerên han di roj de tenê 4500 heya 5000 tûmenan peyda dikin û ger diravê hatin û çûna bi otombîlê lê derxin, rojê tenê 2000 tûmen ji wan re dimîne. Eva jî di halekê de ye ku avahiyên Mela Hesenî, nûnerê rêberê rejîma Îslamî û pêşnimêja Mizgefta Şîiyan li bajarê Urmiyê li bajarokê Şêx Tepe, bala hemû mirovekî ber bi aliyê xwe ve dikişîne.

Bi rastî eva çi çarenivîsek e ku hinek Melayên paremayî ên desthilatdar anîne serê xelkê?

Belê eva ye 30 sal desthilatdariya rejîma Komara Îslamî a Îranê û bi gotina wan hukûmeta nûnerên Xwedê li ser erdê.

Çima xwendekarek ku 9 mehan ders xwendiye û mandî bûye, divêt 3 mehên bêhnvedana havînê bona kirîna kinc û pirûkên xwendinê yên sala pêşîn karên herî dijwar û giran bike?

Eva di halekê de ye ku perê xelkê Îranê ji bo girûpên terorîstî û destavêtin di nava kar û barên welatên cînar yan çêkirina xwendingehan ji bo zarokên Lubnanî, Felestînî û... tê terxankirin. Di rewşekê de ku xelkê Îranê pitir ji hemû kesên din hewcedarê vî diravî ne û hejarî û xizanî gişt Îranê bi xwe ve girtiye.

***

# Navenda Nûçeyan Ya PDK Îranê: "Bigihin Hawara Kawe Cewanmerd"

Navenda Nûçeyan ya PDK Îranê di daxuyaniyekê de daxwaz ji hemû saziyên mafê mirovan kir ku ji bo azadkirina canê Kawe Cewanmerd, rojnamevan û çalakê sivîl hewlê bidin.



Di daxuyaniya han de hatiye Kawe Cewanmerd 28 salî û çalakê sivîl li bajarê Sine ji sala 2005'an, ve hatiey girtin û niha jî di girtîgehê de ye û seba azar û îşkenceyên zaf tûşî çend nexweşiyên dijwar yên cismî û ruhî hatiye û jiyana wî ketiye xeterê.

Kawe Cewanmerd, bi buxtana beşdarîkirin di xwenîşandanên sala 2005'an ya li bajarên Kurdistanê ji aliyê hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê ve hate girtin. Navhatî ji aliyê taya 2 a dadgeha Şoreşa Îslamî li Sine bi 5 sal cezayê girtîgehê tê mehkûmkirin û di Dadgeha pêdeçûn a yekem de bo 2 salan cezayê girtîgehê tê mehkûmkirin û di pêdeçûna duyem de bo salekê kêm dibe, lê mixabin Kawe Cewanmerd hêj jî di girtîgeha Meraxê de li jêr îşkence û azaran de ye û tûşî gellek nexweşiyên metirsîdar hatiye.

Lewra em weke Navenda Nûçeyan a PDK Îranê daxwazê ji hemû sazî û kom û civatên alîgir yên mafê mirovan dikin ku li hember cinayetên rejîma Komara Îslamî a Îranê bêdeng nebin û ji bo azadiya Cewanmerd hewlê bidin.

# Kebûdvend Bi Awayekî Veşartî Hate Dadgehîkirin

Li gor rapora Saziya Çavdêr a Mafê Mirovan li Kurdistanê, Mihemedsidîq Kebûdvend, di rûniştineke veşartî de ku bi qasî yek demjimêran dom kir, bi buxtana xebat li dijî ewlehiya neteweyî, hate mehkûmkirin.



Navhatî roja yekşem, 25.05.2008'an, li taya 15 a Dadgeha Şoreşa Îslamî li Tehranê hate dadgehîkirin.

Dadwerê dadgehê li gor têdîtina 1 a madeya 188'an a yasaya olî ya dadweriya civakî, belavbûna her cure nûçe û raporek derheq dadgehîkirina han, qedexe kiriye.

# Kuştin Û Birîndarkirina Xelkê Selmasê Her Didome

Roja 26.05.2008'an, ciwanekî 18 salî bi navê **Çengîz Rehmanî**, di gundê Qolazen a Selmasê, ji aliyê hêzên dijî gelî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê dikeve ber êrîşa guleyan û tê kuştin.



Heya niha tu agahiyek derheq kuştina navhatî nehatiye zanîn.

Hêjayî gotinê ye ku çend rojan berî niha li devera Şipîran a Selmasê, kesek bi navê **Nacî Têmûrî** dikeve ber êrîşa hêzên rejîma Komara Îslamî û birîndar dibe.

# Bêkarî Li Îranê Bêdadê Dike

Rapor: Agirî/ Beşa Civakî

Pirsgirêka bêkariyê di aboriya welatê Îranê de, pirsgirêkeke bingehîn û kevin e. Asta xizanî û hejariyê li Îranê roj bi roj ber bi jor diçe, bi awayekê ku desthilatdarên rejîma Komara Îslamî a Îranê jî nikarin haşayê ji vê çendê bikin.

Li gor gotina Cîgirê Îdareya Pilandarêtin û Çavdêriya Serok Komariyê, %20 ji xelkê Îranê anku 14 milyon kes di bin hêla hejariyê de dijîn.

Lê çima di welateke weke Îranê de ku di warê çavkaniyên bin erd de gellek dewlemend û zengîn e û îro rojê nirxa her bermîlek niftê pitir ji 130 dolaran e, bêtirî 14 milyon kesan di bin hêla xizaniyê de dijîn?!

Dr. Qasimlo di pirtûka xwe a Kurdistan û Kurd de dinivîsîne: "Welatên tak berhemî ger tenê ew pereyê ku ji rêya firotina niftê bi dest dixin, bi awayekî dadperwerane di nava xelkê de parve bikin, tu kes xizan û feqîr namîne".

Di vê derbarê de belavoka aborî a "MISS"ê dinivîsîne: "Ji mêj deme ku jordebûna asta bêkariyê yek ji pirsgirêkên welatê Îranê bûye û seba vê çendê Îran tûşî gellek zirar û ziyanên aborî, siyasî û civakî hatiye.

Belavoka han herwiha didomîne: %34 ji ciwanên temen 15 heya 24 saliyê li Îranê bêkar in û bi giştî %25 ji nifûsa çalak ya vî welatî tevî pirsgirêka bêkariyê berbirû ne".

Herwiha li gor gotina Îshaqî, Cîgirê Îdareya Lêkolînên Saziya Neteweyî a Ciwanan, bêkarî di nava ciwanên temen 15 heya 24 sliyê li Îranê 23/21 ji sedî ye û di nava ciwanên temen 15 heya 29 saliyê de %20/5 ji sedî ye.

Herwiha weşana aborî a "MÎS"ê asta bêkariya jinên Îranê bi vî awayî dinirxîne: "Di halekê de ku jin tenê %13 ji hêza karî a welatê Îranê pêk tînin, asta bêkariya jinan di vî welatî de %40 e û li gor hinek raporan tenê %15 ji jinên xwendevar xwediyê pîşeyekî jêhatî ne.

Nebûna sîstemeke berpirs û dedperwer li Îranê bûye sebeb ku rewşa jiyana xelkê vî welaî roj bi roj ber bi dijwariyê here. Helbet xizanî û belengazî di hemû beşên Îranê de neweke hev in. Ger em berhevdanekê derheq jiyana xelkê Kurdakincî tevî jiyan xelkê Farsakincî bikin, ev yeka baştir ji me re eyan dibe.

Her ji destpêka bidestvegirtina desthilatê ji aliyê hin Melayên kevneperest ve, serbarê sepandina şer û kavilkirina Kurdistanê ji aliyê rejîma hov a teze bi desthilat gihîştî ve, di vê beşa welatê Îranê de tu car projeyên avedanî û nûjenkirina aborî tune bûye. Neteweya Kurd seba xizanî û bêkariyê, di jêr zext û givaşeke bêsînor de ne û bona dabînkirina hewcehiyên jiyana xwe tevî gellek astengan berbirû ne.

Eva di halekê de ye ku nirxa niftê roj bi roj jorde diçe û rejîma Komara Îslamî a Îranê ji rêya han ve dahateke zaf bi dest ve tîne.

Lê wiha dixuye ku dahata han ne ji bo xelkê ye, belku ji bo girûpên terorîstî yên Îslamî, bona têkdana ewlehiya cîhanî tê bikaranîn.

# QENCÎ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Erênî û xweşbîniyên jiyanê egera cêjdariya hebûn û nebûna mirov e. Başî, çêyî, qencî, erênî, bedewî, xweşikî, xweşbînî; an jî berevajî wê xerabî, nebaşî, bêrêtî, zistî, reşbînî...û hwd. girêdayî hişmendiya mirov têne şêwandin. Her mirov dîlê dil û mêjiyê xwe ye. Belê her wiha her mirov afirînerê erênî û neyîniyên jiyana xwe ye jî.

Tiştê ku jiyanê bi mirov didin hezkirin an jî reşkirin, fermandariya dil û mêjî û fermanberiya çav û guhê mirov e. Çav û guhên mirov her gav di fermana dil û mêjiyê wî/wê de ne. Mêjî çi fermanê bide çav dê wê bibîne û guh wê bibihîze. Fermanberiya çav û guh girêdayî vîndariya mêjî ye. Vîndariya mêjî, mirov arasteyî erênî û xweşbîniyên jiyanê dike. Heke ne wisa bûna wê çaxê tu wateya başiyên jiyanê yên ku her gav di pozberiya nebaşiyên wê de dikudîne û li têkbirina wê dicehdîne, nedima.

Xweşikî û xweşbîniyên jiyanê li gora reşbînî û nexweşiyên mirovahiyê manîdar dibin. Heta ku reşî û nexweşî tune be tukes nikare başî û xweşiyê rave bike. Her wisa heke tirs û sawa mirinê tunebûna wate û cêjdariya jiyanê jî qet nedihate fêmkirin. Wekî ku Seneca jî dibêje : "Ey jiyan, ji mirinê bişêkirîne. Lewre ji te hezkirina min tev ji rûyê wê ye." Gilî an jî gazinca mirov ne ji ber nebaşî û neyîniya jiyanê ye. Mirovên ku di binehişîna xwe de her gav xof û gumana mirinê dihewînin, nikaribin kêf û çêjê ji jiyanê wergirin û xweşî û dilgeşiya jiyanê bitehmînin. Her çend ku gellek caran ne li gora dilê mirov be jî başî û nebaşî du kirûyên jênager û çarenîn ên rasteqîna jiyanê ne. Ligel ku gellek bûyer, rûdan û geşedaniyên dinê, derî vîna mirov pêk tên jî dîsa bandoreke mayînde li ser jiyana wî/wê ya rojane dihêlin û wî/wê ber bi hest û helwestên neyînî û reşbînî ve dikin. Lê belê dîsa jî ne pêkan e ku her mirov wekî hev û din bifikire an bi heman awayî tev bigere. Liv, bizav û helwestgirtina mirovan a li hember bûyer û qewamên dinê ji hev û din cuda ye. Heman bûyerê, hin kes bi awayekî xweşbînî û hin jê jî bi reşbînî rave dikin û dinirxînin.

Heke her mirovê/a dinê bi awayekî reşbînî bifikirya û tevbigeriya tu wateya xweşbînî û reşbîniyên jiyanê jî nedima. Lewre her dijber bi nakokiyên xwe re diwelide û her nakokî dijberê xwe dixuliqîne. Dîsa jî tu mirov (rewşa mirovên awarte û dereasayî ne tê de) naxwaze ku di nav tarîtiya reşbîniyên jiyanê de bixeriqe û bibe niştecihekî/e tenahiyê yê/ya vê dinê. Bêşik û bênîqaş her mirov ji reşî û nexweşiyên vê dinê dipelikîne û xwe li pejn û şopa bedewiyên jiyanê digire. Her mirov dixwaze bibe dilxwaz û xwazgîniyê jiyaneke şadî, şanaz û dilşad û dîsa her mirov dixwaze bibe kiriyarê cîhaneke aram, bedew, berken û bêxem. Ango tu kes naxwaze nîgaşên xwe di nav tarîtiya reşbîniyên reş û stewr de bi devê kêr û xencerên zingarî û şûrên poz bixwîn bifesilîne. Her kes dixwaze bi hêviyên avis re jiyaneke xweşbêhn û cîhaneke xweşbîn bi hev ve bidirû.

Tu car xerabî û neqenciya mirovên neçê ji hest û bizavên mirovên çê re nabe asteng û spartek. Her mirov nûserê(nivîsarê) lênûska xwe ya tawanbariyê ye. Belê her wiha yê/ya rûmetdariyê ye jî. Maf û mikûniya(derfeta) her mirovî/ê heye ku lênûska xwe ya tawanbariyê li hev bipêçe û ji lênûska xwe ya bêrîtiyê(bê gunehiyê) rûpelekî nû veke. Û lênûska xwe bi xweşdîtin û xweşbîniyên vê dinê bineqişîne. Ji ber ku deriyê baxê cîhaneke bêkul û gulbêhn tenê dikare bi kilîda xweşbîniyên jiyane li piştê bibe. Mirovên ku aştiya cîhanê û aramîbûna wê ji xwe re wekî kar û bar neqandibe an jî yên ku xwe ji bo dilxweşiya mirovahiyê binbar û peywirdar dihesibîne, divê pêşî li hember reşbîn û reşbîniyên vê dinê şerekî tund û dijwar li dar bixe. Û di vî warî de lêkdaneke bêdeman bikudîne.

Dibe ku îro zû; belê sibehê dereng be. Ji bo divê tovê xweşî û xweşbêhniyên sibehê bi destê mirovên îroyîn were reşandin. Qey ku gur û mî bikaribin pevre biçêrin. An jî mirov û mirov bikaribin bi hev re bijîn.

***

*Kaniya Helbestan*

## Ji kû heya kû



**Bêrî Bihar**

Ka binihêre !
Ev rê...
Ev rê rêya me ye

Bûye lûsa rawil û sewalan,
Ji fêkîyên nêrît û janên me,
Ji hêvî û ramanên me doşekên sitûr girêdane
Li ser wan mar û dûvpişkan pal dane,
Dûyê qelûnên wan bûne ewrên reşgiran li ser baxên me.
Li benda barîna herî bi xişm me teyroka wan î xezeban.

Ka binihêre !
Ev rê...
Ev rê rêya me ye

Ji peşkên barana şerê azadîxwaziya me,
Pêlên dijwar yên neyartiyê dizên,
Ji ava zelal vedixwin dostên me!!!
Ew xwarinxurên demekî sifra me ya dewlemendiyê
Şaredariya xwe avakirine li ser qûlpikên têrxwarinê.

Ka binihêre !
Tu nas dikî?
Ev rê rêya me bû

Rêya min û te,
Bûye korç û newal,
Di yek ji wan korçan de veşartî me ez,
Bûne delavokên hûrik di korçan de hestên me,
Weke sêwîstêrkan li hev civîyane.
Dilerizin...

Çawa be jî, ev rê rêya me bû,
Xirab be jî ezê wê biparêzim
bi xwezaya xwe ya jinantiyê.
Çawa be jî ked û xwêdana me rijîyayê.
Bixwazî dîsa were, hewl bide û bimeşe,
Ezê nas bikim pêlkirina te,
Nas bikim ezê,
rêçên te yên nermik
li ser çavên xwe...

# Di Salvegera 76 Saliya Kovara HAWAR'ê De

**Konê Reş**
**Qamişlo 15 Gulana 2008**

***Dema ku em behsa zimanê kurdî yê standart dikin, ew ji bo hemû Kurdan e, ne tenê ji bo Kurdên başûr, ji bo vê yekê jî divê ji hemû perçên Kurdistanê zimanzan û lêkolînvan di wê xebatê de cih bigirin, ezê jî piştgiriya wê xebatê bikim...***
**Mesûd Barzanî**

Ezbenî ! Cihê şanaziyê ye ku em 76 saliya yadîvegera yekemîn kovara kurdî, bi tîpên latînî bibîr bînin. Ev kovara ku yekemîn hejmara wê di **15 gulana 1932**'an de, li Şama şerîf, ji rex mîr Celadet Alî Bedirxan ve dihat çap û belavkirin.

Di baweriya min de, dûrdîtina mîr Celadet Bedirxan xwediyê Hawarê û giringiya weşandina wî ji vê kovarê re, ev bû; Ku zimanê kurdî bê parastin û kurdiya latînî di seranserî kurdistanê de belav bibe.. Hem jî ku kurd wek tevayî xelkên cîhanê bibin xwedî alfabeyeke xweser…Mîr Celadet xweş bawer bû, ku yekîtiya kurdan di yekîtiya zimanê wan de ye û yekîtiya ziman ji yekîtiya tîpan dest pê dike û wek ku gotiye: ***"Herwekî me çend caran gotiye; yekîtiya miletê kurd bi yekîtiya zimanê kurdî têtê pê. Di yekîtiya ziman de gava pêşîn jî yekîtiya herfan e. Yanî ji bona nivîsandina zimanê miletekî divêt zana û xwendewarên wî miletî bi tevayî ji bona zimanê xwe elfebeyekê bibijêrin û heke di wî zimanî de çend zar hene, zar hemî bi wê elfabê bêne nivîsandin."***

Lê sed heyf û mixabinî ku di wê hingê de berêz Tewfîq Wehbî Beg xwe ji ber projeyê mîr Celadet Bedirxan da alî..?! Li kovara Hawarê hejmara (10'an, Sala 1932'an) Vegere, gotara Mîr a bi navê (***Li Ser Yekîtiya Zimanê Kurdî*** ), hem jî ku bersiva ji Pîrût re li ser gotarê wî (***Ekis Sedayî Hawar*** ). Hingê wê xweş ji we re diyar bibe..

Erê Ezbenî, ku di wê hingê de berêz ***Tewfîq Wehbî Beg*** dengê xwe tevî dengê mîr Celadet Bedirxan kiriba û piştgiriya wî ji weşana Hawarê û tîpên ku wî ji zimanê kurdî re bijartine, bi erênî pejirandiba, îro roj, ev problema ku li Kurdistana azad, di warê standardkirina zimanê kurdî de heye, çê nedibû..Ev problem gelekî xerabe wek ku hûn tev dizanin, cudabûnê dixe nav kurdên Bakur û Başûr de.

Ev problem di roja 28.4.2008'an de, di heftînameya ***Rûdaw,*** hijmara 4'an de hat diyarkirin, dema ku Wezîrê Perwerdeya Kurdistanê birêz ***Dilşad Ebdulrehman*** piştgiriya xwe ji wan 53 kesên soranîaxêv re bi erênî pejirandiye, ewên ku beyannameyek di rojnameya Rûdaw de belav kiribûn, ku şêwezarê Soranî bibe zimanê standard li Kurdistanê. Tevî ku ev yek qet nayê pejirandin ji rex rewşenbîrên resen ve.. Belê me çend dengên bihêz di vî warê de seh kirin wek, birêz **Hesen Silêvanî**, serokê Yekîtiya Nivîskarên Kurd tayê Duhokê ku wî di hevpeyvîneke taybetî de ji bo Avesta bal kişandiye ser vê pirsgirêka di navbera rewşenbîrên Kurd de li ser pirsa Soranî, Kurmancî û alfabeya kurdî û wiha gotiye: ***Tu kes li herêma Behdînan naxwaze soranî bibe zimanê standart. Ez bi xwe naxwazim ku zarokên min kurmancî bihêlin û biçin tenê bi soranî perwerde bibin. Tu kes vê yekê qebûl nake. Em ne ligel vê yekê ne. Em tu caran qebûl nakin soranî bibe zimanê perwedeyê yê standart... Em qebûl nakin kesek li ser zarokên me soranî feriz bike.. Riya herî baş ewe ku hem li herêma Soranan hem ji li herêma Kurmancan, bi her du zaravayan perwerde çê bibe..."***


Konê Reş

Her wiha birêz **Mihemed Ebdula** cigirê serokê Yekîtiya Nivîskarên kurd li Duhokê, wî jî wiha gotiye: ***Daxwazê ji hemû zimanzan, pispor, nivîskar, rewşenbîr û siyasetmedarên kurdperwer û dilsoz li devera kurmanciya xwarê dikin ku mafê wekhev biparêzin û palpiştên binemayên demokrasiyê bin û ji zimanê sepandinê dûr kevin û evê biryarê ji bo me û zarokên me bihêlin, ku her li qonaxa yekê seretayî ta qonaxa dûmahiyê ji zankoyê bi şêwezarê dayîka xwe bixwînin û binivîsin û perwerde bibin, eve jî mafê me yê rewa ye, eger we bawerî bi mafê mirovî, demokrasiyê û bîr û boçûnên cuda cuda hebe...***

Belê ya herî xweş ku van hersê şareza, pispor, zimanzan, dilsoz û kurdperweran ku bi şêwezarê Soranî, kurmanciya xwarê dipeyivin, (***Dr. Emîr Hesenpûr, Dr. Rêbiwar Fetah û Hesen Qazî***), wan jî beyannameya wan 53 nivîskarên xwarê red kirine û daxwaza wan nepejirandine..Ji xwe ez nayêm ser gotinên nivîskarên Bakur û Rojava.. ew kirasê xwe diçirînin..Belê ezbenî wek ku hûn mêze dikin, eva piştî 76 salan careke din em li mîr Celadet Bedirxan vedigerin û li kovara wî Hawarê vedigerin û mêze dikin, bê ew çendî di vî warî de, dûrdîtî, şaraza û zana bû..Ji berî 76 salan ve wî berhemên piraniya nivîskarên kurdan bi şêwezarê Soranî û Badînanî di kovara xwe Hawarê de belav dikirin..Mixabin, ku roja îro, nîvdewletek me çê bûye, nikare kovarekê wek Hawarê bi herdu şêwezaran biweşîne..

Kovara Hawarê, ev kovara ku yekem car di dîroka kurdan de zimanê kurdî bi kurdiya latînî, herdu şêwezar, di nav rûpelên wê de cih digirtin... Bi saya vê kovarê, yekemîn car e ku zimanê Kurdî bi herdu şêwezarên, bi tîpên latînî berdest dibe. Hejmara pêşîn ji vê kovarê di ***15 gulana 1932'an*** de hatiye weşandin, ango ji berî 76 san ve, hejmara dawîn(57) di 15 tebaxa 1943'an de derketiye. Ev kovar li bajarê Şama şerîf, dihat çap û weşandin û li nav Kurdên Cizîrê, Efrînê, Zaxo, Hewlêr, Rewanê, Kirmaşanê û heta Mûsil û Bexdayê jî belav dibû.. Cihê mîr Celadet Bedirxan buhişta rengîn be.

SAL 11 HEJMER 57 YEKŞEMB 15 TEBAX 1943
HAWAR
ANNÉE 11 NUMERO 57 DIMANCHE 15 AOÛT 1943
KOVARA KURDÎ ✱ REVUE KURDE
TEFSÎRA QURANÊ

* - Ev gotina **Mesûd Barzanî** ye**,** ya ku wî li Duhokê, di civînekê de gotiye, dema pirsa ziman hatiye rojevê, min jî ev gotin ji hevpeyvîna ku Avesta bi birêz Silêvanî re kiriye girtiye.

# Weşana Rojnameya “Hawarî Nîştimanî” Gaveke Dîrokî Di Bizava Mafxwazane A YCDK Îranê

**Dara Natiq**

Piştî bi dawîhatina şerê duyem yê cîhanê û di sala 1324’an ya Rojî(1945) de, dema ku yekemîn dewleta Kurdî, bi cehd û tekoşîna rêberên jêhatî yên wê demê yên Partiya Demokrat a Kurdistanê û li serweyî hemûyan rêberê zana û lehengê Kurd Qazî Mihemed, Komara Demokratîk a Kurdistanê weke veguhartineke dîrokî di bizava rizgarîxwazane a Kurd de tê holê, karî di heyamê kêmtir ji yek sal li temenê xwe, gellek destkevtên dîrokî û girîng, di warê siyasî, aborî, civakî û çandî de, bo gelê me bike diyarî.

Avakirina rêxistina Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistanê jî, weke yekemîn saziya sivîl û taybet bi nifşa ciwan û dînamîzma guhartinê di civaka Kurdî de û di hemen demê de weke yek ji diyarî û destkevtên dîrokî yên Komara Kurdistanê, di wê demê de, anku di civakeke paremayî û nexwendewar ya wê demê a civaka Kurdistanê de û bi cehd û bîrmendî û hikmeta siyasî ya şexsê Pêşewa Qazî, bibe hêvêna zaf guhartin û pêşkevtin û avakirina civakeke sivîl û şaristanî û herwiha zanîngeha pêgehandina ciwanan bi çekên zanistî û teknolojiya serdem.

Yekîtiya Ciwanan her di wê demê de, serbarê ektîvbûn û herwisan karekterê sereke yê nava bûyerên civaka Kurdistanê, weke pitansiyelekî ektîv û bi bandor di çepera berevanîkirin ji man û hebûna neteweya xwe, karî gellek pêngavên erênî û bihagiran di pêxema xizmetkirin bi pêşxistina civakê û nifşa ciwan bavêje.



Hejmara 1 a Kovara “Hawarî Nîştiman” di serdemê Komara Kurdistanê de

Wê saziyê her di wê demê de, bi merema zêdetir girîngîdan bi pirsên ciwanan û vejandina seha neteweyî di nava ciwanan û komkirina ciwanan bi dora YCDKÎ û PDKÎ û herwiha yekrêzî û hevpêwendî, xebat bo rizgarî ji bindestiyê û cehda gihîştin bi azadiyê û ... yekemîn weşana xwe bi navê “**Hawarî Nîştiman**” weke organa wê saziyê di bervara 19’ê Banemera 1325’ê Rojî de belav kir.

Weşana “Hawarî Nîştiman” bi cehd û mandîbûna xebatkarên mîna:

**Sidîq Encîrî Azer**, weke sernivîskarê rojnamê û **Enwer Dilsoz**, **Dilşad Resûlî**, **S. Naniwazade**, **Mela Ebdula Davûdî**, **Mihemed Tofîq Wêrdî**, **Mihemed Şapesendî**, endamên desteya nivîskarên “Hawarî Nîştiman” karîn heya 5 hejmaran biweşînin û gellek mijar û şiroveyên bibandor û dewlemend û pêwendîdar bi civaka wê demê a Kurdistanê û ciwan û pirsa neteweyî û hişyarkirina asta xebata neteweyî di nava ciwanan de, xwedî bandor be û bibe hevêna hiviya pêşeroja ciwanan û gellek keç û xortên şoreşvan û ronakbîr bi dora xwe kom bike.

Bêşik lênihêrînek di nava rûpelên zêrîn û dîrokî yên wê demê yên rojnameya “Hawarî Nîştiman” de, gellek rastiyên haşahilnegir ji me re dide eyan û vê rastiyê diselimîne jî ku Yekîtiya Ciwanan û birêveberên wê di bin tîrojkên rênîşanî û hizirvaniya rêberên pêşkevtî û xwedî helwestên PDK Îranê û li serweyî hemûyan Pêşewayê nemir, rol û erkên xwe bi sehkirin bi vê berpirsiyariya dîrokî bi cih bigehîne.

Lê mixabin, piştî hiloşîna Komara Kurdistanê, di sala 1325’an a Rojî de bi destê rejîma dîktator ya Rizaşa û pêk hatina, rewş û zirûfa tepeserkirine di Kurdistanê de, derfeta xebat û tekoşîna azad bi çi partî û rêxistinekê nehate dayîn. Yekîtiya Ciwanan jî bi naçar bo berevanîkirin ji man û hebûna neteweya xwe, tevî şoreşvanên Partiya Demokrat, berê xwe dane çiyayên Kurdistanê. Mixabin wê demê bi egera rewş û zirûfa taybetî a xebata çiya û nebûna îmkanatên hewce, weşandina rojnameya “Hawarî Nîştiman” jî hate sekinandin. Lê di sala 1378’an a Rojî(2008) de, Govara Lawan weke organa vê rêxistinê û domkiraveya Hawarî Nîştiman hate veşandin.

Di zistana sala derbasbûyî de û li bereberê cejna 2’ê Rêbendanê, salvegera avabûna yekemîn dewleta modern û pêşkevtî ye Kurd, anku Komara Kurdistanê, rêberiya hilbijartiya kongireya çarem a Yekîtiya Ciwanan, di biryareke şoreşvanî û bicî de, bo hurmetgirtin ji cehd û tekoşîna rêber û avakerên yekemîn dewleta Kurdî û li serweyî hemûyan pêşengê şehîdan Qazî Mihemed û birêveberên wê demê yên Yekîtiya Ciwanan û herwiha rûmetgirtin ji xebat û tekoşîn û pênûs bi destên vê demê yê rojnameya Hawarî Nîştiman û di hemen



Hejmara 1 a Kovara “Hawarî Nîştiman” di sala 2008’an de, li ser şopa kovarê di serdemê Komara Kurdistanê de

demê de axavtin û hevpeyvîn tevî kesayetî û şahidên nava bûyerên Komara Kurdistanê, bi merema bidestxistina zanyariyên zêdetir derheq çawaniya diyarîkirina roja avabûna Yekîtiya Ciwanan, biryara weşana vê rojnamê da ku yekem hejmara wê a taybet bi Komara Kurdistanê, di 2’ê Rêbendana 1386’an a Rojî(21.01.2008) de hate belavkirin. Derketina Hawarî Nîştiman, piştî çend 10 sal xebat û tekoşîn bo careke din, tevî pêşwazîkirina germ ye tex û qatên cur bi cur ên civakê û bi taybetî ronakbîr û keç û xortên welatê me di hundir û derveyî welat de berengar bû.

Her piştî vê cehdê, Heyeta Rêveber a Yekîtiya Ciwanan, paş bas û berhevdana aliyên cur bi cur ên xebat û tekoşîna Yekîtiya Ciwanan li derveyî welat, di warê dîplomasî, rêxistinî, siyasî û çandî û herwiha bi berçavgirtina vê çendê ku cîhana îro, cîhana masmîdiya û ragihandin û dîplomasiyê ye û di hemen demê de bo zêdetir nasandina doza berheq ya gelê me û pirsên ciwanan bi cîhana derve û herwiha haydarkirina cîhanê, ji kiryarên dijîmirovî û siyasetên biyom û dijî mirovî yên rejîma melayan û sedsala navîn a Komara Îslamî, biryar da ku rojnameya Hawarî Nîştiman îro pêde hemû mehê carekê, weke organa Desteya Nûneriya Yekîtiya Ciwanan a derveyî welat, bi du zimanên Kurdî û Îngilîzî bihê weşandin.

Bi xweşî ve her piştî vê biryarê, yekemîn hejmara Hawarî Nîştiman bi hewl û xebata ciwanan ji derveyî welat bi du zimanên Kurdî û Îngilîzî di bervara 26’ê Banemera 1387’an a Rojî, hember 15’ê Gulana 2008’an çap û belav bû.

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

## Parlamentoya Swêdê Mijûl E Operasyona Enfalê Weke Jînosayd Nas Bike



Malpera "chaknews"ê diyar kir ku Parlamentoya Swêdê di pêşerojeke ne gellek dûr, dê civînekê derbarê nasandina operasyona Enfalê weke jînosaydkirina Kurdan lidar bixe.

Vê jêderê ragihand, piştî ku Navenda ÇAK li dijî jînosaydkirina Kurdan, kampaynek li Ewropayê pêk anî, daxwaz kir ku operasyona Enfalê ku ji aliyê rejîma Bees a Îraqê di sala 1988'an ku li dijî kurdan hate meşandan, weke jînosayd nas bike. Vê navendê heta niha karî ye di vê rêyê de piştgiriya 42 endamên Palemanê, 3 partî û sê serokên partiyên Swêdî bidest xistiye.

Bi vê armancê jî Navenda ÇAK roja 6'ê Gulana 2008'an, li salona Parlamentoya Swêdê konfernasekê lidar xist û Parlamenteran jî soz daye ku di Parlemanê de vê yekê bixin berbas. Li gora agahiyê her dawî qirar e roja 11.6.2008'an Parlamentoya Swêdê li ser vê mijarê civîneke traybet pêk bîne.

## 5'mîn Festîvala Fîlmên Kurdî Ya Berlînê Dest Pê Kir




Roja 24'ê Gulana 2008'an 5'mîn Festîvala Fîlmên Kurdî ya Berlînê dest pê kir û dê 8 rojan berdewam be.

Di çarçoveya vê festîvalê de, nêzîk 40 fîlmên Kurdî ji her çar parçeyên Kurdistanê ên kurt, dokumenter û yên sînemayê li Kurdistanê û Ewropayê tên nîşandan. Panel tên lidarxistin, derhêner û hunermendên rol wergirtine bi temaşevanan re gengeşe dikin.

Hêjayî gotinê ye ku hinek hunermend û derhênerên warê Sînemayê weke Behmen Qubadî, Şewket Emîn, Hiner Selîm, Hişam Zeman dê basa Sînemaya Kurdî û Fîlmên Kurdî bikin.

## Di Salê De 50 Hezar Kes Di Îranê De Ji Ber Kişandina Cixareyan Dimirin




Di cîhanê de herî kêm di salê de, 5 milyon mirov di encama kişandina cixarê dimirin. Di vê navberê de pisporên Wezareta Tendurustî ya Îranê eşkere kirin ku salê 50 hezar kes di Îranê de ji ber kişandina cixarê jiyana xwe ji dest didin. Bikaranîn û kişandina cixareyê bandorên pirr xirab li ser tendurustiya mirov heye, weke nexweşiyên dil, ruvî, penceşêr (kaster) û nemaze penceşêra ruvî, asm (bêhnçikî) û gellek nexweşiyên din... .

Karnas dibêjin ku rêjeya kesên ku cixareyê dikşînin, her sal zêdetir dibe. Tê gotin ku niha milyarek û 300 milyon kes ji nifûsa cîhanê cixareyê dikşînin ku 84 ji sedê a vê hejmarê li welatên ne pêşketî û nemaze di Îranê de ne.

## Ji Weşanxaneya Avesta 3 Pirtûkên Nû




Di nav weşanên Avesta de 3 pirtûkên nû derketin û bi wan re kitêbxaneya Kurdî dewlemendtir bû. Sê pirtûkên çapbûyî ên ku Weşanxaneya Avesta li Stenbolê çap kirine, ev in:

1. Pêncemîn kitêba Arjen Arî ya helbestan bi navê '**Şêrgele**' û '**sûretên hisretê û keservedan**' ji du beşan pêk tê.
2. Romana nû ya Jan Dost '**Mîrname**', Mijara romanê Ehmedê Xanî û dema wî ye. Lê ev roman ne biyografiya Xanî ye bi qasî ku ew biyografiya her rewşenbîrekî ye ku li hember desthilatdariya hundir û derve xebatê dike.
3. Kitêba helbestan a Diya Ciwan '**Bênder**' di rêza Şahmaran de çap bû. Şahmaran taybet e bo berhemên nivîskarên jin ên kurd û heta niha ji hemû parçeyên Kurdistanê 13 berhem çap bûne di vê rêzê de.

Desteya Weşana Agirî pîrozbahiyê ji her sê nivîskarên hêja ên van pirtûkane dike û spas û pêzanînê jî pêşkêşî Weşanxaneya Avesta dike û hêviya serkevtin û berdewamî di kar û xebatê ji wan re dixwaze.

## Destpêka Hikûmeta Komarî, Sîstema Paşatiyê Li Nîpalê Bi Dawî Hat



Parlamentoya welat Nîpalê di gaveke dîrokî û girîng de, sîstema Paşatiyê li wî welatî hilweşand û ragihand ku ji roja pêncşem, 30'ê Gulana 2008'an virve, sîstema siyasî di vî welatî de **Komarî** dibe.

Piştî 239 salan desthilatadriya Paşatiyê li Nîpalê, roja pênceşemê, ala Şahenşahî a li ser Koşka Paşayê wî welatî anîn xwarê û ala nû a Nîpalê hildan. Li gora biryara Parlamentoyê, piştî rakirin û nemana rejîma Paşatiyê, ev welate dibe Komarek demokratîk ku tê de ol ji hikûmetê cuda dibe û guherîna şekl û awayê ala vî welatî jî dê bibe sembola vê guhartinê di sîstema siyasî a Nîpalê de. Hin partiyên Nîpalî ji sala 1990'an şûnde bona vê armancê dixebitîn. Girîca Pirasad Koyîrlama, Serok Wezîrê Nîpalê got emê bi vê hencetê şahiyek mezin lidar bixin û em daketine serdemeke nû, hêvî û xweziya hemû xelkê Nîpalê bicî hatiye.

Ji wê demê şûnde ku Şahê Îranê di encama şoreşa gelên Îranê di sala 1979'an de, li ser kar hate avêtin, heta niha tu Paşayek di cîhanê de li ser desthilatê nehatibû rakirin.